Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 165
22'ê Tebaxa 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdi

**Birêz Mesûd Barizanî di peyamekê de bersiva** pirsenameya Mistefa Hicrî da

R: 2

**9 partiyên siyasî ên Kurdistanî, di daxuyaniyekê de êrîşên Turkiyê şermezar kirin**

R: 2

**Ragehandina Deftera Siyasî a PDKÎ derheq** bidawîhatina 11'mîn pilînoma Komîtyeya Navendî

R: 3

**Waneyek ji bo dîktatoran! Demên dawîn** ên rejîma Qezafî

R: 4

# 25'ê Gelawêjê, destpêka xebata modern û kopika hişyariya netewî

Di 25'ê Gelawêja Îsal de 66 sal bi ser temenê pirr li destkevt û serweriya PDK Îranê re derbas bû. Damezirana PDK Îranê verçerxanek girîng di dîroka siyasî a gelê Kurd û detpêka xebata modern û rêkxistinî bû. Li vê derheqê de çalakî û rê û resmên cur bi cur li Kurdistan, Îran û hinek welatên cîhanê birêve çû.

Li binkeya Deftera Siyasî jî rê û remek hêja û girseyî birêve çû ku têde Têmûr Mistefayî, Endamê Deftera Siyasî ê PDKÎ, bi nûneratiya Deftera Siyasî, peyamek pêşkêş kir ku deqa peyamê di taybetnameya vê hejmarê de dikeve ber çavê we xwendevanan.

Em jî wek desteya weşana Agirî, 25'ê Gelawêjê ji gelê Kurd û endam û alîgerên PDKÎ pîroz dikin.

## Esed daxwaza bicîhiştina desthilatê ji hêla rojava ve bêbuha hesiband

Pêka ajansan, Beşar Esed, serkomarê Sûriyê derheq gazî û vexwendina rojava li dor dest berdana ji desthilatê, helwesta xwe nîşan da û bêbuha û binav kir. Wî xwe bi hilbijartiyê xelkê da zanîn û got daxwazek han nerewa û şaş e.

Eve li halekê de ye ku zêdeyî 2000 kesan heta niha ji hêla rejîma Esed ve hatine kuştin û zext û givaşên navnetewî jî li ser rejîma wî zêde bûne û tehrîmên cur bi cur li ser de hatine sepandin.

**YE' ê kirrîna neftê ji Sûriyê qedexe dike**

Nûnerên 27 welatên endamên YE çend rojan berî niha li ser hawirdeya nefta xaw ji Sûriyê gihîştin lihevhatinek siyasî. Herweha dixwazin li çend rojên tê de 20 berpirsiyarên din ên rejîmê bixin bin tehrîman de.

## Di êrîşên balafirên şerkerên Turkiyê de 7 hevwelatî bûne qurbanî

Roja Yekşemî, 21'ê Tebaxê li doma êrîş û bombardomana balafirên şerker ên Turkiyê bo ser sînorên herêma Kurdistanê, 7 endamên malbatekê bûne qurbanî û herweha zerer û ziyanek madî a zaf gihaye rûniştiyên deverên ser sînorî û gellek kes derbider bûne.

**Sipaha pasdaran** serbazên Sûriyê dikuje!

Şehab Xalidî

Wezîrên karê derve ên Kuweyt û Behrînê ragehandin ku wan bona nerizayetî nîşandana...

R:3

**Fitwayek demdirêj û şikestxwarî**

Selîm Zencîrî

Piştî wê ku dara xebat û berxwedana gelên Îranê û yek ji wan jî gelê kurd li dijî sîstema dijî mirovî û azadîkuj...

R: 7

**Qasimloyê** Mezin di jiyana min de

Têmûrê Xelîl

Van dawiyan, di şahiya 25 saliya pîrozkirina Înstîtûta Kurdî ya Parîsê de, camêrekî ji Kurdistana Îranê ber bi min hat û got:...

R: 7

**Salvegera rijiyana du** stêrkên esmanê hunera Kurdî

Kewê Zer

Gelek mirovên mezin di gemiya xemên mûzîka Kurdî de gihîştin ...

R: 10

Hejmar 165, 22'ê Tebaxê 2011

# Birêz Mesûd Barizanî di peyamekê de bersiva pirsenameya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê da

Birêz: Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat

Bi rêz û hurmet ve pirsenameya we ya bi boneya koça dawî a dayîka min gihîşt destê min.

Sipasiya we dikim û ji xwedayê mezin daxwaz dikim ku we ji hemû nexweşiyekê biparêze.

**Bi hêviya serkevtin û bexteweriyê**
**Mesûd Barzanî**
**08.08.2011'an**





## Sergotar

## 66 sal xebat di pêxema azadiyê de

**Selîm Zencîrî**

Xebata gelê kurd di pêxema azadî û mafên netewî de dîrokek dûr û dirêj heye. Serhildan li pey serhildanê çê bûne, lê ji ber ku li ser bingehek zanistî û durost çê nebûye, li dû hev de bi sedemên cuda hatine têkçûn. Lewma hewcehiya tevger û rêxistinek siyasî - netewî a demokratîk, modern û zanistî ku bikare bersivderê xwast û daxwaziyên kurdan, guhertinên li civakê û hişyariya siyasî a wan be, piştî şerê duyemîn ê cîhanî li kurdistana Îranê de weke valahiyek dîrokî xwe da xuya kirin.

Ceribîn û ezmûna siyasî û teşkîlatî a Komeleya (J-K)'ê bû alîkar ku hizbek siyasî li ser xîm û bingeha wê were damezrandin. Eva bû ku 66 salan berî niha li 25' Gelawêja 1324'an a Rojî de Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji dayîk bibe û çavê xwe bi rûyê dinê veke.

Avabûna organîzasiyon û rêxistinek siyasî û serdemiyane bi navê Hizba Demokrat li wê rewşa aloz a siyasî de bi nuqte guhertinek mezin, çarenivîssaz û bibandor li dîroka tevgera kurd de tê hejmartin û li rastî de nîşana zanebûna rêberên wê û hişyariya siyasî û netewî a civatên xelkê kurdistanê di wê demê de digehîne.

Tevgera kurd bi avabûna PDK Îranê bû xwediyê bername û stratejiyek jêhatî û organîzasiyonek siyasî. Teşkîlatek ku li pêvajo û piroseya karê siyasî de asta hişyariya siyasî û netewî a xelkê bibe jor û ji vê riyê ve jî berevaniyê ji xwast û daxwaziyên netewî ên kurdan bike û bi misogerkirina wan li hizra avakirina kiyan û desthilatek netewî de be. Avakirina yekem Komara modern û demokratîk a kurdî bi navê Komara Kurdistanê jî piştî şeş mehan bi ser temenê PDKÎ'ê de eyankerê vê rastiyê ye. Her çend Ku mixabin Komara kurdistanê jî canemerg ma û nekarî armancên xwe bipîve.

Herifandina Komarê her çend derbek giran û ceribînek tal bû li destpêka xebata partiyê de, lê nebû sedem ku bikewe qedeman û ji xebatê bisekine û heta niha jî li pêxema bidestxistina maf û azadiyên kurdan de her li ser piyan û li qada herî pêş a xebat û tekoşîna milî- demokratîk de ye. Li van 6 dehsalên xebata xwe de Hizba Demokrat rastî gelek arîşe û ewraz û nişîwan hatiye û derbên giran û bicerg jî ji cesteyê wê xistine, û nirx û buhayên gelek mezin dane. Rêber û lehengên mezin wekî Pêşewa Qazî, Dr. Qasimlo, Dr. Şerefkendî û bi hezaran şehîdên din pêşkêşî dayîka nîştiman û bargeha azadiyê kirine, lê tu car pişt ji xebat û tekoşînê û gelê xwe nekiriye. Ew tim bûye balgiyê kul, xem, hêvî û armancên neteweya xwe li Îranê, lewma xelkê kurdistanê jî tim mîna çiyayên kurdistanê pişt û penahê wê bûne û nehêlane ku asteng û zehmetiyên xebatê, kurîşkên kaltiyê bixîne ser rûçikê şirîn ê wê; û heta ew piştewanî, hesta şoreşvanî û pêwendiya dînamîkî li navbera her du aliyên tewawker ên hev de hebe, PDKÎ jî dê her li qada xebat, berxwedan û cangorîtiyê de pêşeng bimîne.

## Peyama sersaxiya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi boneya koça dawî a Şêx Nasih Neqşbendî

**Birêz Cenabê Şêx Madih Neqşbendî!**
**Tevî silav û hurmetan!**

Mixabin em ji nûçeyê wefata Şêx Nasih Neqşbendî birayê we hatin agehdarkirin. Bi vê boneyê sersaxiyê ji we yê birêz û endamên malbata xwedê jêrazî Şêx Nasih û hemû malbata birêz a merhûm Şêx Osman dikin û xwe bi beşdarê xemên we dizanin.

Bi hêviya silametî û temendirêjî bo we û endamên din ên malbata we.

**Birayê we, Mistefa Hicrî**
**12.08. 2011'an**
**21.05.1390'an**

## Belavoka hevbeş a 9 partiyên siyasî yên Kurdistanê Kêşeyê Kurd bi êrîşkirina li ser Herêma Kurdistan û Qendîlê çareser nabe!

Her çend berî hilbijartinên 12'ê Xizîranê, heyam heyam operasyonên leşkerî yên artêşa Tırk û çalakiyên hêzên PKK'ê hebûn jî, hêviya çareseriyek demokratîk û aştiyane peyda bibû ku piştî hilbijartinê ligel amadekirina destûrek nû, rê liber çareseriya aştîyane û demokratîk vebe.

Lê belê piştî hilbijartina 12'ê Xizîran ê, operasyonên leşkerî yên artêşa tirk û çalakiyên hêzên PKK'ê roj bi roj zêde bûn, axaftin û helwesta tund û gef xwarina serokwezîrê Tirkiyê Erdogan û hevalên wî, ligel axiftan û ragihandinên berpirsên PKKê yên ne di xizmeta danûstandin û aştiyê da ne. Tirkiye û Bakûrê Kurdistanê bi ber aqarekî xeternak ve birin û bûne sedemê lawazbûna hêviyên aştiyê di nav civatê de.

Hikûmeta AK Partî, li şûna bo aramkirina rewşa aloz û temirandina vî agirî kar bike, ew agir geş û berfirehtir dike û bi firokeyên cengî êriş dike ser Qendîl û aramî û seqamgiriya Herêma Kurdistan li Başûr têkdide. Hikûmeta AK Partî her usa amadekariyê ji bona girtina kesên sivîl, berpirsên partiyên siyasî û komel û civakî dike; bi tometa ku kesên han "alîkariya PKK" dikin. Bi vî awayî AK Partî siyaseta tûnd û tûjiyê bi rêva dibe, ku heta niha encamên baş nedayine.

Divê hikûmeta AK Partiyê ji vê siyaseta çewt vegere, êrişên xwe yên liser Herêma Kurdistanê, ku bandora xirab liser pêwendiyên baş a Tirkiyê û Herêma Kurdistanê datîne bide sekinandinê.

Em êrişên firokeyên şerî yên Tirkiyê li ser Herêma Kurdistanê mehkûm dikin.

Bang li hikûmeta AK Partî dikin, li şûna vê siyaseta çewt û operasyonên leşkerî, ji bona rê xweşkirina çareseriya pirsa Kurd bi rêka diyalogê gavan bavêje.

Em bang li PKK dikin; ku li ser biryara xwe ya agirbesê bimîne. Karên usa neke, ku bibe sedema aloziya Herêma Kurdistanê.

Em banga hêzên aştî û azadîxwaz û demokratên Tirkiyê û Bakûrê Kurdistanê û dem û dezgeyên navnetewi dikin, ku dengê xwe dijî êrîşa Tirkiyê li ser Herêma Kurdistanê bilind bikin.

**21'Tebax 2011**

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê-PDK-Î**
**Partiya Sosyalîst a Kurdistan(Bakur)-PSK**
**Partiya Demokrat a Peşverû Kurd li Sûriya-PDPKS**
**Partiya Welatparêzên Demokrat-PWD**
**Komela Şoreşgerên Zehmetkeşên Kurdistana Îranê-KOMALA**
**Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriya-PYDKS**
**Partiya Demokrat a Kurdistan-Bakur-(PDK-Bakur)**
**Partiya Azadiya Kurd li Sûriya**
**Partiya Demokrat a Kurd li Sûriya(El-Partî)**

# Ragehandina Deftera Siyasî a PDKÎ derheq dawîhatina 11'mîn pilînoma Komîteya Navendî

Komîteya Navendî a PDKÎ hilbijartiyê kongireya 14'mîn ya PDKÎ, pilînoma xwe ya 11'mîn bi beşdariya endamên eslî, cihgir, û rawêjkarên Komîteya Navendî pêk anî.

Pilînom demjimêr 9'ê sibê roja Şemiyê 15'ê Gelawêja sala 1390'an a Rojî (6'ê Tebaxa 2011'an a Zayînî) bi ragirtina deqeyekê bêdengî bona hurmetdanîn ji riha pak ya şehîdan dest pêkir.

Di destpêkê de bernameya karê pilînomê kete ber basê û piştî pesendkirina vê, sekreterê giştî yê PDKÎ rêzdar Mistefa Hicrî lêkdaneweyek siyasî li ser dawî guherînkariyên di cîhan, herêm û Îranê de pêşkêş kirin û aliyên xwedîhêz û lawaz ên wan guherînkariyan û bandorên nîgatîv û pozetîv ên wan guherînkariyan li ser pêvajoya tevgera azadîxwaziyê li Îranê, û xebata neteweya Kurd destnîşan kir.

Di vê çarçoveyê de îşare bi vê hate kirin ku ku meşên bi lom yên welatên bakûra Afrîqayê û Rojhilata Navîn çi yên ku gihîştne encamê û çi jî yên ku berdewamin bi berçavgirtina taybeytmendiyên her welatekê bona gihîştina bi xwestek û daxwaziyên wan hewcehî bi demê heye. Lê ew serhildan li ser yek bi awayekî navincî pêvajoya cîbicîbûna druşm û daxwaziyên xelkê dipîvin. Di vê derheqê de bas ji vê yekê hate kirin ku meş û serhidana cemawerî di Sûriyê de serbarê wan tepeseriyên xwînîn, lê ciyê hêviyê ye, û bi hiloşîna vî welatî wek welatekê ku hem hevpeymanê mêjîn ê rejîma Îranê ye û hem jî wek welatekê ku Kurd têde bê maf e, em dikarin çavnihêrê vê yekê bin ku hem rejîma Îranê destê vê yê tevdanîkariyan û destêwerdanan di beşek ji herêmê de kurt be û hem jî Kurdên vê beşê ji vê rewşa aloz ya niha derbaz bin.

Vê berhevdana siyasî rewşa Îranê û deshilata rejîma Îranê xistibû ber basê û qala vê rasstiyê kiribû ku kêşeya di navbera deshilatdarên vê rejîmê serbarê vê ku aliyê eşkerekirina nihêniyan li ser hevudin pêve diyar e, lê zalbûnan her aliyekê di deshilatê de guherînên bi qazancê demokrasî û daxwazên xelkê lê nakeve.

Di doma vê basê de, îşare bi têkiliyên PDKÎ tevî aliyên siyasî ên Kurd û Îranî hate kirin û pêdagirî li ser domandina wan pêwendiyan hate kirin.

Sekreterê giştî ê PDKÎ li gorî vê berhevdana siyasî erkên PDKÎ di vê qonaxê de destnîşan kirin.

Berhevdanên sekreterê giştî ê PDKÎ ji aliyê beşdarên pilînomê ve bi hûrî ketin ber basê û piştî berçavgirtina çend pîşniyar û têbîniyan hate pesendkirin.

Di beşek din ya bernameya karê pilînomê de nûnerê komîteya karûbarên PDKÎ li dervay welêt beşdarên pilînomê ji rapora kar û çalakî û boçûnên vê komîteyê agehdar kirin. Beşdarên pilînomê derheq vê raporê de bîr û boçûnên xwe bas kirin û



pêşniyar û têbîniyên xwe bona çalaktirbûna organên PDKÎ di dervay weêt de xistin ber basê.

Sekreterê giştî yê PDKÎ di beşek din ya karên pilînomê de basek giştî ji çavanî û şêweya pêkanîna kongireya 15'ê ya PDKÎ kir ku salek din wê birêve here.

Di vê derheqê de jî beşdaran çalakane ew mesele xistin ber bas û nîqaşan û aliyên curbicur ên vê pirsê rohn kirin û yek sal bi derfetek baş dane zanîn bona vê ku bi berhevdana pitir û berçavgirtina armancên PDKÎ bikarin kongireyek hêja û baştir bigrin.

Di dawî beşên karê pilînomê de Komîteya Navendî hijmarek ji hevalên hizbî wek rawêjkarên Komîteya Navendî hilbijartin. Pilînomê piştî cîbicîkirina van biryarên ku li destura karê wê de bûn, êvariya roja yekşemiyê 16'ê Gelawêja 1390'an a Rojî (7'ê Tebaxa 2011'an ) dawî bi karên xwe anî.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**17.05.1390**
**08.08.2011**

# Sipaha Pasdaran a Komara Îslamî di terora Refîq Herîrî de dest hebûye

Li gor zaniyariyên govara Işpîgil, Sipaha Quds a Pasdaranê û saziya Ewlehî a Sûriyê di terora Refîq Herîrî de rol hebûne.

Di dadgeha navnetewî a terora Refîq Herîrî de ku di meha June hat lidarxistin, 4 kes ji endamên Hizbullahê Lubnanê, bi terora Refîq Herîrî hatin tometbarkirin.

Pêka rapora Îşpîgil, ew 4 kes di sala 2004'an bo heyamê çend mehan de di binkeya Îmam Xumênî a Sipaha Pasdaranê li bajarê Qumê de perwerde û hînî taktîkên terorê bûne.

**Tawanbarên terora Refîq Herîrî di Îranê de ne**



Herweha 3 kes ji wan 4 tawanbaran niha di Îranê de dijîn û îmkana destbiserkirina wan tune ye.

Ramîn Mêhmanperest, berdevkê Wezareta Kar û Barên Derveyî rejîmê jî di dijkiryarek li hember vê nûçeyê ragihand ku dadgeha navnetewî, erzişa dadweriyê tune. Seed Herîrî jî di bersiva wî de got ku dijkirara Îran li hember encama dadgeha Refîq Herîrî weke Hizbullahê ye û ev yek nîşanderê nêzîkbûna helwestên rejîma Tehranê û Hizbullahê ye û xuya ye ku ew du heya çi astekê hevaheng û hevkarên hevdu ne.

Di vê derheqê de Hizbullahê ragihandiye ku wan tawanbaran tehwîl nade û bi tu awayek hevkariya dadgehê nake.

# rê û resma bidawîhatina dewreya 199 a Pêşmerge li Fêrgeha Siyasî-Nîzamî a PDK Îranê



Kurdistanmedia: Roja Çarşemî, berwar 10' Tebaxê, rê û resma bidawîhatina dewreya 199 a Pêşmerge li Fêrgeha Siyasî-Nîzamî a PDK Îranê bi beşdariya hejmarek ji endamên rêberî, kadro, pêşmerge û malbatên wan ên li qampa Azadiyê birêve çû.

Rê û resma han bi xwendina sirûda netewî a Ey Reqîb û ragihandina xulekek bêdengî bo canê paqij yê şehîdan destpê kir. Piştre rêjeya nîzamî û şerê sernîze ji aliyê beşdarbûyên dewreya 199 a pêşmerge ve birêve çû.

Pirgeya din a rê û resmê li salona Fêrgeha Siyasî-Nîzamî de birêveçû û di vê beşê de çend gotinek ji aliyê birêz Mihemed Sahibî Endamê Komîteya Navendî yê PDK Îranê ve hatin pêşkêşkirin. Rapora hînkirina vê dewreyê ji aliyê birêz Xalid Seferî mamostayê dewreyê ve hat xwandin.

Peyama dewreya 199 ji aliyê Jiyar Qasimî beşdarbûyê dewreyê ve hat pêşkêşkirin.

Hêjayî gotinê ye ku di vê rê û resmê de çendîn sirûd û sitran hatin pêşkêşkirin.

Di beşa dawî a rê û resmê de, xelat bi ser kesên serkevtî ên dewreya 199 de, ji aliyê birêzan Hemdî Husênî û Riza Feyzî ve hatin pêşkêşkirin.

# Sipaha pasdaran serbazên Sûriyê dikuje!



Şehab Xalidî

Wezîrên karê derve ên Kuweyt û Behrînê ragehandin ku wan bona nerizayetî nîşandana derheq tepeseriya xelkê nerazî ji aliyê rejîma Beşar Esed ve, balyozên xwe ji Sûriyê bang kirine.

Ew biryara piştî vê hate girtin ku Erebistana Seûdî jî wek mezinterîn welatê endamê Şêvra Alîkariya Kendawê balyozê xwe bang kire Riyazê.

Şêxê Ezher jî di peyamekê de ragehand ku rewş, zêde ji qasê aloz bûye, divêt ew cînayet bêne rawestandin.

Ji aliyek din ve sekreterê giştî yê Yekîtiya Ereb, Nebîl Elerebî jî pêdagirî kir ku ew bûyerên di Sûriyê de rû didin, cihê nîgeraniyê ne û ji dewleta wî welatî daxwaz kir da ku bona encamdana aştiya netewî gotûbêjek micid dest pê bikin.

Di dirêjiya şermezarkirina wan cînayetan de Turkiyê jî daxwaz ji Esed kir ku desta ji kuştara neyaran hilgire ku rêkewtekê eşkere û diyar ji bo refrandomek parlemanî danê. Hekî hûn weha nekin emê jî tevlî civatgeha cîhanî bibin û ew helwesta ku me li hember Qezafî de girte pêş em neçarin ku li hemberî we de bigirne pêş.

Konseya Ewlekariyê ya NY li roja 3'ê meha Tebaxê di daxuyaniyekê de Sûriye derheq wan kuştarên ku birêve biriye, protesto kir.

Serbarê vê biryarê hêzên Sûriyê ne tenê dest ji tepeseriyên xwe ên bêrehmane nekêşan, belkî bi cihgirkirina tankên xwe di nawenda bajarê Hemayê de ku derbasbûyiyek dîrokî li xebata bi dijî rejîma deshilatdar de heye, 45 sivîl kuştin.

Ji aliyekî ve rejîma Sûriyê bi awayê herî hovane komkujiyan pêk tîne, û ji aliyek din ve jî bi hinek reformên biçûk dixwaze neraziyan bixapîne û wan vegerîne nav malên xwe de. Ew reform jî azadiya çend partîtiyê (ploralîzma siyasî) bû ku Beşar Esed bi hukmê xwe û bi pesendkirina parlemanê ew biryar da. Lê opozisyona Sûriyê ew biryar bi reformek bingehîn û girîng nehesiband û ragehandin ku ew, daxwaza hiloşîna rejîma Sûriyê dikin û dixwazin ku li rewşek tewaw azad û demokratîk de refrandom birêve here û xelk deshilata xwe ya dilxwaz hilbijêrin.

Derheq destêwerdanên rejîma Îranê di nava karûbarên Sûriyê de bi qazancê rejîma Beşar Esed, Mihemed Me'mûn Elhomsî, yek ji neyarên rejîma Sûriyê ragehand ku hinek ji kirêgirtiyên rejîma Beşar Esed ku dest li tepeseriya neyarên rejîma Esed de hene, ser bi Sipaha Pasdaran, hêzên Sipaha Elmêhdî ya Îraqê û Hizbulaha Lubnanê ne.

Navbirî ku demekê nûnerê parlementoya Sûriyê bûye, di gotûbêjekê de bi rojnameya Eşerqul Ewset re got: "Sûriyê ji Îranê, tektîrawêj anîne jor û niha ew li bajarê Derayê de akincî kirine".

Navbirî herweha ragehand ku "li gorî belgeyan ew hêzên ser bi Sipaha pasdaran, Elmêhdî û Hizbullahê di gel hêzên Sûriyê odeyek hevbeş ji bo tepeseriya xelkê Sûriyê pêk aniye".

Li gorî gotina wî, hinek




trombîlên hilgirê hêzên Hizbulayê şevê ketin nava kolanên bajarên Sûriyê, û şer û pevçûn di navbera xelkê û hêzên bê nav û nîşan li mizgefta Omewî de rû da û pizîşkên Sûriyê piştrast kirin ku nasnameya wan kesan Lubnanî ye".

Li gorî gotina navbirî li bajarê Homsê, Lubnaniyekê 9 hemwelatiyên Sûriyê di sê deqeyan de kuştin. Li gorî rapora karnasên Komîsaryaya Bilind ya Penaberên NY, hêzên rejîma Îranê û Hizbullaha Lubnanê li Îdamkirina serbazên nerazî ên arteşa Sûriyê de ku amade nebûn gulleyan li xelkê nerazî bireşînin, beşdarî kirine.

Ew yekem car e ku binyatek ser bi NY bi awayek zelal rejîma Îran û Hizbullahê (wate her du hevpeymanên Beşar Esed) derheq tepeseriya neyaran di Sûriyê de tawanbar dizane.

Di rastî de deshilatdarên rejîma Îranê piştewaniya xwe ji rejîma Beşar Esed neveşartine. Bo mînak her eva ku Xamineyî êrîşê dikete ser xelkê nerazî û wan bi handayî ji aliyê Amerîka û Îsrailê ve dihesibîne, yan eva ku serokê komîsyona ewlehiya netewî û siyaseta derekî ya meclîsa Îranê daxwaza piştgiriya ji rejîma Sûriyê li hemberî destêwerdanên Amerîka di vî welatî de dike, ew bixwe baştirîn belgeye bo selimandina destêwerdanên rejîma Îranê di nav karûbarên Sûriyê de bi qazancê deshilata Beşar Esed.

Ew tevdanîkariyên rejîma Îranê, nîşanderê giringiya mana li ser deshilatê a rejîma Beşar Esed wek hevpeymanek stratejîk ji bo Îranê ye û bi hiloşîna vê rejîmê, Îran di projeya şandina derve ya şoreşê de di gel kêşeyan berbirû dibe.

Renge vê rejîmê bîr ji pêkanîna têkiliyan bi deshilata piştî rejîma Beşar Esed jî kiribe, yan jî bîr jê bike, lê bi vê piştevaniya ku wan ji Beşar Esed kirin û bi awayê rasterast di kuştina xelkê Sûriyê de beşdarî kirin û xelkê Sûriyê jê agehdarin, gellek zehmete ku desthilata piştî Beşar Esed jî her ew hevpeymanê stratijîk ji Îranê re be ku rejîma Beşar Esed bo Îranê be. Jiber ku Îranê tewaya pirên piştî xwe hiloşandin û êdî tu riyek ji gegeriyanê re nehêlaye.

# Waneyek ji bo dîktatoran! Demên dawîn ên rejîma Qezafî

Rejîma Qezafî, dîktatorê Lîbiyê demên herî hesas ên jiyana xwe diqedîne û li ser dîwarê hiloşînê cih girtiye. Nerazî û şoreşî gihîştin dawîn çepera Qezafî anku Terablosê. Herweha meqer û binkeya Qezafî ji aliyê neraziyan ve hatiye dorpêç kirin û gelek ji hêzên taybet ên wî hatine dest biser kirin, awahiya radyo û televîzyona dewletî a Lîbiyê jî xistin bin kuntirola xwe de, lewma her ji niha de xelkê azadîxwaz ketine cejn û şahiyan.

**Du kurên wî hatin girtin**

Ji hêla din ve jî çavkanî bas dikin ku du kurên Qezafî hatine girtin ku navê (seyfulîslam) bi esehî hatiye erê



kirin.û li destê neraziyan de ye û ev nûçe ji hêla dadgeha navnetewî a Laheyê ve jî hat piştrast kirin. Ji ber ku bi tawana cînayet li dijî mirovahiyê li jêr teqîb û lêgerînê debû.

**Qezafî neyar û neraziyên xwe bi mişk û xayîn şibhand**

Tê gotin ku li demek gelek nizîk de Terablos bi yekcarî were azadkirin û dawî bi temenê rejîma dîktator a Qezafî bihê anîn û NATO'yê jî ragihand ku tiştek bi hiloşîna rejîma Qezafî nemaye.. Eve jî li halekê de ye ku Qezafî li dawîn peyama xwe bi deng, neyar û neraziyên hikûmeta xwe bi mişk û îxanetkar hesibandin.

# Tesîra kirîzên cîhanî li ser abûriya Îranê



Rêbwar Fanî

Kirîza niha ya abûrî a cîhanî, tesîr li ser gelek welatên di halê geşekirinê de kiriye û bi taybet li daketina buhayên seham, kêmiya nexdî û kêmbûna îmkanatên îtibarî di wan welatan de reng vedaye. Bi liberçavgirtina kanalên pêwendiyên hevber ên abûrî û malî di asta cîhanê de, pêşhatina rewşek han çavnihêrnekirî nebûye.

Di heman hal de pirsiyara ku derdikeve holê, ev e ku gelo kirîza han li ser abûriya Îranê jî tesîr hebûye yan dê bibe?

Heya niha, encamên nerênî yên kirîza malî bo Îranê ev bûye ku buhaya neft a xaw piştî çend mehan jordeçûna di bazarên navnetewî de, di van heftiyên dawîn de daketiye. Alvêrçiyên bazara neftê ku baweriya xwe derheq berdewamiya geşekirina abûriya cîhanê û di encam de zêdebûna daxwazan bo neftê ji dest dane, weke çend mehên berbasbûyî, elaqeyek wusa bi kirrîna pêşwext a vê kalayê bi nirxên giran ninin.

Ji aliyê din ve di vê rewşa niha de, parêzmana abûriya Îranê ji bandorên kirîza cîhanî nenormal nine. Ji ber ku abûriya vî welatî xincî hinartina neftê û hawirde kirina kalayan, ku bi kêmaniya mifahstandin ji îmkanatên nawnedên navnetewî tê encam dayîn, pêwendiyek wusa bi abûriya cîhanê re nine û di encam de zû nakeve jêr bandora wan guhertinan.

Bi awayek din, herçend dûrbûna ji hevkêşeyên abûrî û malî ên cîhanî tê wateya bêparmana ji qazancên di riya îmkanatên torên malî ên cîhanî de, lê serhildana kirîzê, bûye asteng li hember tesîr û karîgeriyên nerênî ên bilez li ser abûriya Îranê.

Beşa dirawî û malî a Îranê jî bi giştî ji bazarek tekmehsûlî û bankên dewletî, li rex beşa binerdî a çalak di warê wamên nefermî de ku bi sûdên giran pêkhatiye, bi giştî bi piştgirêdan bi qazanc û dahatên neftê jîna xwe didomîne. Bi wî awayî gelek sedemên malî û piskolojîkî ên kartêker û bibandor li ser bazara malî a cîhanê di Îranê de mijarek ne girîng e.

Di rastî de nawendên pareyî û malî ên fermî ên Îranê, li bin desthilata tewaw a dewletê de ne ku wan li gor xwastên xwe ên siyasî îdare dike û usûla rikeberiya azad ku tenzîmkerê bazarên malî û pere ên pêşketî ye, nahê berçav girtin.

Ji aliyê din ve, gelek ji jordeçûn û daketinên malî û abûrî ku di nêrîna welatên pêşkevtî de ne cihê pejirandinê ne, di Îranê de normal û bo rayedaran û nemaze bo xelkê rewşek asayî û cihê nigeraniyê nine û hin ji bername û siyasetên abûrî ên neçalak di Îranê de, di pirraniya welatên din de nahê pejirandin û heta bi kirîzafir tê zanîn.

Welatên pêşkevtî ên cîhanê, ragirtina balans û berdewamiya geşekirina abûrî, damezrandin, pêşgirtin ji serîhildana hilmisînê (werimîna abûrî), dûrketin ji kêmbûna bodceyê, zêdebûna asta berhemanînê ji aliyê sermiyandanînê û başbûna rewşa






ticarî a xwe, weke hewcehiyên siyasî ên xwe dizanin.

Di halekê de ku li Îranê, di çend dehsalên dawîn de, diyardeyên weke pêşneketinê, aloziyên li encama guhertinên siyasî ên navxweyî û derveyî yan guherînên di rewşa bazara cîhanî a neftê, helawsana zaf, kêmkirina bodceyên kelan, bêkariya zêde û abûriya tekmehsûlî rewşek cihê pejirandinê bûne. Bi vê yekê, hin ji guhertinên ku bi raya gelek welatên din, nîşana pêşhatina kirîzên kûr e, di Îranê de bi heman şîwe nahê nirxandin.

Renge borsa Tehranê ji wan borsan be ku li kirîza abûrî a niha ya cîhanê de kêmtirîn zirar dîtibe. Sedema wê jî hebûna kirîzek kûr li borsa Îranê di salên borî û li encama tehrîmên heyî û dabezîna zêde ji qasê ku bazara sermaye a Îranê dagirtiye ye ne hêza borsa Îranê.

Bazara Sermaye a Îranê, bêy baldan bi bûyerên cîhanî li halê borînê de ye. Bi awayekê ku şîrketên çalak di borsê de li gor daxwaza navxweyî li halê berhemanînê de ne, û kêmiya daxwazên cîhanî bandorek wusa berçav li ser asta berhemanîna wan tune.

Kirîza abûrî a dawîn li rojavayê, di Îranê de bi awayek rasterast ji riya dabezîna nirxa neftê dibe sedema berhemanîna nexalis a navxweyî di Îranê de, di encam de dibe sedema jordeçûna kêmî(kesr)a bûdceyê.

Ji ber girêdayîbûna rijd a Îranê yeksan nebûna buhaya neftê, bi awayek sade mirov dikare encamê jê bigre ku her sedemek ku nirxên cîhanî ên neftê bixîne bin bandora xwe, bi awayek rasterast û nerasterast aboriya Îranê jî dixe bin bandora xwe de.

Ji girîngtirîn sedemên karîger li ser nirxa neftê, daketin yan jordeçûna abûriya cîhanê ye. Bi awayekê ku li dewrana geşeyê de, daxwaza neftê, dikare bibe sedema jordeçûna nirxa neftê. Bi awayekê ku li salên dawîn de, abûriya cîhanê bûye şahidê vê diyardeyê.

Herçend Îranê pêwendiyek abûrî a wusa bi abûriya cîhanê re nine, lê kirîza pêkhatî li abûriya cîhanî de ji riyên weke nirxa neftê, bûdceya welat, hawirde, nirxa diraw, bazara sermayeyê, bazara pere û ... dê bi ser abûriya Îranê tesîrê bike û abûriya welat dê tûşî kirîzê bike.

Li vê navberê û ji hemûyan girîngtir girêdayîbûna zaf a abûriya Îranê û bûdceya dewletê bi dahatên neftê ye. Ji ber ku her terze dabezînek li nirxa neftê de bilez dê tesîrê li abûriya Îranê bike û dê arîşe û kêşeyan pêk bîne. Bi taybet ku dewletê li salên dawîn de bûdceya xwe li ser esasa nirxa bilind a neftê rêk û pêk bike û bi rêkarek sade û di heman dem de pir xeter û metirsîdar weke pêxordan(tezrîq) a pere bi şademarên abûriya Îranê bi bêkariyê re ber bi rû bike. Lewma her terze kêmbûn li buhaya neftê de, pirsgirêkên piralî ji bo abûriya Îranê pêk nahîne.

Abûriya ''rantî''a Îranê ji ber dahatên çavkanî girtî ji neftê ku li rastî de tu beşek ji berhemanîna nexalis a navxweyî (GPD) nine, her tim girêdayî bi rewşa madî, geşe û herweha dabezîna welatên daxwazkarê neftê dibe.

Bi vî halî li lîstika abûrî a gundê biçûk ê cîhanî de abûriyên rantî (weke ya Îranê) çareyek xincî temaşakirin û pasîvbûnê tune. Li vê navberê de abûriyên bihêz ên weke Amerîka û Yekîtiya Ewropayê ne, ku bi siyasetên hûr û gir ên xwe, rê ji ber borîna ji kirîza abûrî berhev dikin.

# Egera dorpêçkirina Banka Nawendî a Îranê û encamên wê



**Dara Natiq**

Di çend salên derbasbûyî de, Îran berdewam ji aliyê civaka navneteweyî ve bi awayên cur bi cur, bona berdewamiya rejîma hakim derheq bi bernameyên navikî, binpêkirina mafê mirov û... ketiye bin dorpêçan û bûye hegera perawêz ketine roj li rojê zêdetir a vê rejîmê di asta cîhanî de.

Her di doma dorpêçên nawend û welatên cîhanî bo ser Îranê, di çend rojên derbasbûyî de zêdetir ji 90 Senatorên ser bi herdu partiyên Komarîxwaz û Demokratxwaz li Amrîkayê, di nivîsokekê de, daxwaz ji Serkomarê Amrîkayê kirin ku bi tehrîmkirina Banka Nawendî a Îranê weke nebza abûrî a vî welatî, asta dorpêçên bo ser wî welatî berfirehtir bike.

Senatorên Amrîkayî di vê nameyê de bi eşkere dane xuya kirin ku " DYA diviya sitratejiyek tevalî bo givaş anina ser sîstema malî a Îranê û dorpêçên zêdetir bi dijî Banka Nawendî a vî welatî destpê bike".

Bêşik dorpêçên organîzekirî ên Banka Nawendî a Îranê, dikare rêya pişikdariya Îranê di sîstema malî a cîhanê de qut bike û dewleta Taranê ji veguheztina çendîn milyard dolar ji pereyê firotina heyvane a petrolê bo xezîneya welêt bêpar bike. Herwusan çavdêrên siyasî bas ji vê çendê dikin ku, tehrîma Banka Nawendî weke nebza abûrî a Îranê dikare aloziyên navbera Komara îslamî û Amerîkayê kûrtir bike.

Banka Nawendî a Îranê, rolek berçav li serxistin û pêşvebirina bernameya navikî a wî welatî de dilîze û herwusan navendeke sereke ye bo harîkarî û piştgîriya girûpên tundrew û binajoxwaz yên weke Hemas û Hizbolah û.... bi merema têkdana tenahiya herêmê, û destêwerdan di kar û barên welatên cîran, bihêz kirina hêzên tepeserkare rejîmê bo serkutkirina tevgerên azadîxwaz û fetisandina dengê nerazîtiya xelkê.







Tehrîmkirina Banka Nawendî ji aliyê civaka navneteweyî ve bandorek nerênî li ser hemî wan bername û pirojeyên rejîmê dike ku bi merema ragirtina deshilata dijî mirovî a xwe mifahê jê distîne û herwisan dibe hegera bilind bûna buhaya petrolê û arîşe û girêpêçkên zaf di kirîna neftê di Îranê de çê dike. Mixabin di çend salên derbasbûyî de hevalbendên Ewropayî û Asiyayî yê Amrîkayê bi hegera berjewendiyên taybete xwe, nemaze di kirîna petrol û alvêra bazerganî tevî Îranê, hertim nîgeranê dorpêçkirina Banka Nawendî a vî welatî ji aliyê Amrîkayê ve bûn.

Lê wusan dixuye ku tehrîma han ji aliyê DYA'ê ve bo ser Banka Nawendî a Îranê tevî dijberiya parek ji welatên Ewropayî û Asyayî berbirû be. Ji ber ku ceribînên derbasbûyî dane xuyakirin ku zaf caran welatên xwedî biryar û bibandor di asta cîhanî de, bi hegera berjevendiyên taybet ên xwe, anku alvêra bazerganî tevî wilatê Îranê, ji her cure siyasetekî dijî mirovî û tepeserkirina bêrehmane a xelkê sivîl ji aliyê vê rejîmê ve çavê xwe miqandine û li hember wan tehrîmên ku bandorek bingehîn li ser rejîmê hebûye, dijberî kirine yan amade nebûne ku wan tehrîmane birêve bibin.

Lewma Amerîka bo besîc kirina givaşên navneteweyî bo ser Îranê û dorpêçên zêdetir bi dijî wî welatî û razîkirina hevalbendên xwe bo tehrîmkirina Banka Nawendî a Îranê, tevî dijwariyên zêdetir berbirûye.

# Sêvr, ew peymana ku li ser kaxezê ma!

**Rûken**

Di sala 1916'an piştî bidawîhatina gotûbêjên di navbera nûnerên Birîtaniya (Mark Sayks) û Firansayê (Corc Pîko) de Kurdistana li jêr desthilata Osmanî bi du beşen A û B hate parvekirin û piştî haydarbûna dewleta Rûsiyê bi nûneriya Sazanof ji naveroka vê peymannameyê, beşek ji Kurdistanê jî kete bin desthilatdariya Rûsyayê. Di peymannameya han de, herêmên Kurdakincî bi vî awayî hatibûn parvekirin.

Bakûrê Kurdistan di bin desthilata Rûsiyayê de be.

Başurê Kurdistan (Herêma niha a Kurdistanê, Mûsil û Kerkûk) di bin desthilatdariya Birîtaniyayê de be.

Rojavayê Kurdistanê di bin desthilatdariya Fransayê de be.

Çar salan piştî wajokirina peymana Sayks Pîko, di 10.08.1920'an de peymana Sêvr di navbera hêzên serkevtî ên şerê yekem yê cîhanî û Împeratoriya Osmanî li bajarê Parîsê de hate wajokirin.

Li gor vê peymannameyê ku Şerîf Paşa û desteya nûneratiya gelê Kurd têde beşdar bûn, Împeratoriya Osmanî hate perçekirin û di bendên 62, 63 û 64'an yên vê peymanê de biryarên bi vî awayî hatin dan.

Di nav sînorê Osmaniyan da wê dewleteka Kurd a otonom bête sazkirin. Salekê piştî dengdaneka giştî li ser daxwazên gelê Kurd, dewleteka Kurdî a serbixwe were damezirandin. Kurdên herêma Mûsilê jî, wê têkevin nav sînorê vê dewleta serbixwe.

Deqê benda 63'an ya vê peymanê bi vî awayî bû:

Dewleta Turkiyê li gorî vê peymanê razî dibe ku biryarên her du komîsyonên baslêkirî li benda 62'an de, di nava sê mehan de, wate piştî vê ku bi dewleta Turkiyê bête ragehandin, cîbicî bike.

Di benda 64'ê de jî hatibû ku salekê piştî cîbicîkirina vê peymanê xelkê akincî li wan herêmên ku li benda 62 de qala vê hatiye kirin, serdana Civaka Neteweyan bikin, û bi awayekê bidin selimandin ku piraniya nifûsa wan herêman daxwazkarê cudahiya ji Turkiyê ne, û her demekê Civaka Neteweyan diyar bike ku xelkê wan herêman hêjayî wergirtina serxwebûnê ne û daxwazê bike ku serbixweyî bi wan bête dan, Turkiye li gorî vê peymanê razî dibe ku vê biryara Civaka Neteweyan bi cî bîne, û dest ji tewaya maf û poanên xwe di wan herêman de hilgire.



Şertê desthilgirtina Turkiyê ji wan maf û hiqûqan, pêkanîna peymanek din ya cuda di navbera hêzên sereke ên hevpeyman, û dewleta Turkiyê de ye. Heke Turkiye dest ji wan maf û hiqûqên xwe hilgire, divêt hêzên sereke tevî hatina dilxwaz ya Kurdên vê beşa Kurdistanê ku heya niha ser bi wilayeta Mûsilê bûne, bo nav welatê serbixwe de dijberiyê nekin.

Peymana han yekemîn belgeya navneteweyî di dîroka gelê Kurd de bû ku bi awayekî zelal qala Kurdan û mafê diyarîkirina çarenivîsa wan dikir.

Lê mixabin ew biryar hemî li ser kaxizê man û li sala 1923'an de bû ku peymana Lozanê pêk hat û tewaya wan sozan bûne goriyê qazanc û berjewendiyên dagîrkerên herêmî û cîhanê ji aliyekê, û ne siyasîbûn û nakokiyên di navbera Kurdan de ji aliyekê din ve. Bi vî awayî wan hemû fakteran dest dane hev û car din tewaya hêviyên kurdan û xewn û xeyalên wan ji nav birin.

## Tasika kelltir ji aşê!

### Îran û mifah standina xirab a teblîxatî ji aloziyên Birîtanyayê



Senar Hatemî/Swîs

Li hefteyên derbasbûyî de cîhan bûye şahidê nearamî û şoreşên berbilaw li çend bajarên Birîtanyayê de; ku çend rojan dewam kir û xesar û zirarek mezin gihand kerta taybet li wir. Eyane ku Birîtanya "Medîneya Fazile" û bê eyb û kêmasî nine, û mirov nikare newekheviyên abûrî, bêkarî û hin pirsên din nedîtî bihesibîne, lê welatek demokratîk, xwedî yasa û berpirsiyar e li hember xelkê xwe de.

Raya giştî û welatên biyanî serbarê nîşandana hevderdiyê, piştewaniya atifî ji xelkê û zirardîtiyên Birîtanyayê kirin, lê ya balkêş, helwesta rayedarên Komara Îslamî û hin rejîmên weke ya Sûriye, Lîbî û Zîmbaweyê li vê derheqê de ye ku nearamiyên Birîtanyayê weke derfet bo pasawdana kiryarên dijî mirovî ên xwe û herweha heyf û tolhildana ji Ewropiyan bona kêm kirina zext û givaşên li ser xwe bikar anîn. Bi taybet her yek ji rêber, serokkomar û serokê rêxistina besîc li Îranê de bi cuda axivîn û serbarê mehkûm kirina dewleta Birîtanyayê, daxwaz ji NY kirin ku şandek xwe ji bo parastina mafê mirov(têkderan) bişîne wir; yan daxwaz ji balyozxaneya xwe li wir kirin ku deriyên xwe li hember bikuj, talançî, diz û çeteyan de vekirî bihêlin. Ji hemûyan seyrtir amadegiya xwe ji bo şandina hêza serkutker a besîc weke hêza –parêzerê aştiyê- bo Birîtanya nîşan dan!!!!

Ev îdia û axavtinên berpirsiyarên rejîmê li demekê de ne ku eva zêdeyî 5 mehane li Sûriyê de serşoka xwînê ji hêla rejîma hevalbendê Îranê ve hatiye birêxistin û heya niha bi hezaran kes ji hêla rejîma Esed ve hatine kuştin û birîndar kirin; ku cînayetên Esed ne tenê nebûye sedema biziwandina hest û wijdana -mirovî- a Komara Îslamî, belkî fizîken beşdare li serkut kirina xwenîşanderan û li warên madî û menewî de jî alîkare bo temirandina vê şoreşê.

Ji hêla din ve ew hêza ku ew bi aştîparêz nav dibin, karnameyek reş li serkutkirina hovane a xwepêşanderên Îranî de heye û bi taybetî piştî destnîşan kirina Ehmedî nijad bo serokkomariyê, bi tundtirîn metoda tepeseriyê, kuştin û îdamê bersiva hawara zadîxwaziya xelkê dan. Paşan daxwaza hinartina şandek taybet a NY bo Birîtanyayê li dor mafê mirov, mesele û dosyayek e ku ne bawerî pê hene û heya niha jî ne tenê hevkariya Ehmed Şehîd, nûçegihanê taybet ê NY bo mafê mirov li Îranê nekirine, belkî heta îzna çûn û sefera wî jî bo Îranê nedane!

Ew newekhevî, ferq û cudahî û hejariya ku Ehmedînijad li Birîtanyayê weke fakter û sedemên nearamiyan dizane, ma li Îranê de tune? Ma %50 a xelkê Îranê li bin hêla hejariyê de najîn? Ma mafên mirovî, siyasî û çandî ên xelkê ji hêla rejîmê ve nahên pêpeskirin? Ma rejîm bi xwe mezintirîn pêpeskarê mafê mirov li Îranê û serekîtirîn piştewanê terorîzmê li cîhanê de nine? Başe ger şoreşek wiha li Îranê de biqewime, dê çend hezar kesên bêguneh bên kuştin, îşkencedan, zînanî û îdam kirin?

Ew helwesta rejîma Îranê di çarçoveya mifah standina teblîxatî, berevaj nîşandana rastiyan, haydan ji bo dizî û talanan û herweha pasawek bo veşartina cînayetên xwe li dijî gelên Îranê û serkut kirina bizava azadîxwaziya wan e ku ji hêla civaka cîhanî ve ketiye bin zext û givaşan ve. Lewma ew helwesta wan serbarê şaşîtiyê, ne tenê bal xelkê Îranê pêkenokî û cihê pejrandinê nine, belkî encamek xirab û berevaj a teblîxatî ji rejîmê re heye.

Rojev

## Fitwayek demdirêj û şikestxwarî



Selîm Zencîrî

Piştî wê ku dara xebat û berxwedana gelên Îranê û yek ji wan jî gelê kurd li dijî sîstema dijî mirovî û azadîkuj a Paşatiyê çilû da û berhem û berê wê bû bi şoreşa seranserî a gelên Îranê, li encam de dawî bi temenê nigrîs û biyom ê rejîmê hat.

Xebat û şoreşek ku bi hêviya azadî û pêşerojek bêhtir bo civakê bû. Gelê kurd jî bi pêşengiya tevgera siyasî a xwe û bi taybet PDK Îranê li hemû alav û fersendekê bona demokratîze kirina Îranê û misogerkirina xwastên netewî ên xwe mifah stand. Lê rejîma Komara Îslamî ku taze siwarê hest û îhsasatên xelkê û sermestê desthilata xwe bibû, her roj pêgeh û xîmê dîktatoriya xwe qahîmtir dikir û li dewsa rejîma paşatî û zêdetir ji wê jî gav diavêt. Her roj pîlan û kompiloyek lidar dixist û bi hêceteké ve xelk diçewsand û desthilat qorix dikir.

Her li mehên destpêkê ên hatine ser kar a xwe de, rejîmê şerek giran bi ser xortên gelê kurd de sepand. Ew êrîş bi newroza bixwîn a Sine bi nav û deng bû û bi sedan xortên qehreman ên kurdan bi bêgunahî li nav xwînê de hatin gewizandin. Midehek şûndetir şerê Nexedê bi ser kurdan de sepand û dîsan kesên bê berevan bûna xwediyê vê şere dasepayî.

Tevgera siyasî a kurd bi pêşengiya PDKÎ li vê çarçoveyê de gelek gav avêtin û çendîn şande û heyetên nûneratiyê li dor xwastên kurdan û çareseriya pirsgirêka kurd ji riyên aştîxwazane ve hinartine Tehranê, daku pêşiya wan xwîn rijandinan bigre. Lê mixabin kakila dijî mirovî û nedemokratîk a rejîma Komara Îslamî û şexsê Xomênî rêgirî bû li hember her terze xwast û daxwazek siyasî û demokratîk de. Wî dixwast ji riya şidet û tepeseriyan ve hejmoniya xwe bi ser xelkê de bisepîne û wan jî daxwazên rewa ên xwe dilsar bike.

Rejîmê berdewam saza şer lêdixist û her car bi hêceteké êrîş dikire ser kurdistanê. Rejîmê bi wan êrîşan naveroka rastîn û niyeta dilê xwe eşkere kir. Lewma şerê Pawe kire hêcet bo armanca xwe a sereke ku xwe li ferman û futwayek siyasî û mesebî de bona helandin û asimîlekirina kurdan de didît. Belê Xomênî li 28'ê Gelawêja 1358 (1979)an de bi dana hukmê cîhad li dijî kurdan û helal kirina can, xwîn û namûsa wan êrîşek giran û şerek bêhempa bi ser xortên azadîxwaz de sepand ku têde bi hezaran kurdên bêguneh û mafxwaz bûne goriyê kerb û kîna Xomênî ê hov û cînayetkar û rejîma dijî mirovî a wî.

Tevgera siyasî a kurd bi pêşeng û rêberiya PDK Îranê bona berevanîkirin ji kurdistanê û pêşigirtin ji siyaseta helandina netewî, riya xebat û berxwedanê da pêşberî xwe û bi comerdî û qehremantiya xwe nehişt pîlanên wan biser bikewin. Ew bû piştî sê mehan bi ser êrîşên giran û li hember de jî berxwedana qehremanane a xelkê, rejîm neçar ma cama jehrê vexwe û daxwaza got û bêj bike.

Eve jî di halekê de bû ku tevgera siyasî a kurd dizanî ew daxwaza Xomênî ne ji dil û ne jî di çarçoveya rawestandina xwînrijiyê de ye, belkî bo xemilandin û rêkxistina dubare a hêzên serkutkerên xwe û darêtina pilan û bernameyek berfirehtir bo êrîş û tepeseriyane. Lê tevgera siyasî dîsan jî bi pêşwaziya wê daxwazê ve çûn û got û bêj û riyên aştiyane kirin siyaset û armanca xebata xwe. Lê piştî midehek kurt dîsan her tişt bêencam ma û rejîmê dîsan şerê xwe berdewam kir ku heya niha jî di şekl û awayên cur bi cur de dirêjî heye.

Kurdistan kirin bi nawendek leşkirî û bi tewahî mîlîtarîze kirin. Girtin, kuştin, îdam, îşkence, ferq û cudahî, bêmafî û sivikatîkirin bû para rojane a kurdan, û heya niha jî rejîm her roj bi pîlan û hêcetên cur bi cur ve li dijî xelkê derdikevin. Lê ya herî balkêş, xelkê kurdistanê tu car teslîmê xwast û daxwaziyên wan nebûne û rejîm tim stûxwar û şikestxwarî hiştine. Rejîmê çiqas zext û givaş anîbe, ewqas îradeya bihêz û yekgirtî a xelkê li hember xwe de dîtiye. Çiqas gef û çavsoriyan bike, ewqas hesta berxwedanê li derûna wan de bihêz dike.

Niha 32 sal in bi ser fermana qetlîama kurdan de derbas dibin, gelê kurd û pêşnegê xebata wan ne tenê bi çok de nehatine, belkî agirê xebat û berxwedana xwe roj bi rojê geştir kirine û soz û peyman dane ku heya demokratîzekirina Îranê û misogerkirina xwastên xwe dê ji xebatê nesekinin.

Li vê çarçoveyê de niha bext bi gelê kurd û gelên din yên Îranê re ye. Ji ber ku serdemê dîktatoran bi dawî hatiye. Ger berê tenê gelê kurd kakila rejîmê nas dikir, niha naveroka wê ji hemû gelên Îranê û cîhanê re eşkere bûye.

Ya paştir jî agirê dubendiyê ketiye mala wan û ewqas kêşe û pirsgirêkên navxweyî hene ku take rêçareya xwe derbaskirinê di serkut û xwînrijiyê de dibînin, fakterek ku êdî modela wê biser çûye û kes nikare li hember de bêdeng bimîne. Lewma hişyarî a siyasî a xelkê Îranê bi giştî û gelê kurd bi taybetî asteng e li hember pêşveçûna siyasetên rejîmê û hinde nemaye ku bi yekêtî û hêza pengurî a xwe him dawiyê bi fermana demdirêj a cîhad û kuştaran bînin, him heyf û tola tawan û cînayetên encamdayî jê bistînin û dara demokrasiyê li Îranê de biçînin, ku berhema wê bo hemû pêkhateyên netewî, dînî û mesebî be.



# Qasimloyê Mezin di jîyana min de



Têmûrê Xelîl

Van dawiyan, di şahiya 25 saliya pîrozkirina Înstîtûta Kurdî ya Parîsê de, camêrekî ji Kurdistana Îranê ber bi min hat û got:

-Xanimek dibêje, ku reng û rûyên te bi wê ra gelekî nas e, lê ne di bîra wê da ye ka we li ku hev dîtiye.

Min jê pirsî, navê wê çi ye? Got navê wê Nesrîn e. Min tu xanimeke bi navê Nesrîn nas nedikir. Ez nêzîkî wê bûm û bi ser va çûm, ku ew Hêlêna xanima Ebdurehman Qasimlo ye, ku bi kurdî jê ra dibêjin Nesrîn û me berî 35 salan, sala 1974'an li Pragê hev dîtibû. Me hevdu demeke dirêj hemêz kir û te qey digot hesreta 35 salan ji hev hildida...

Evê hevdîtina bi wê xanima delal ra ez 35 salan ber bi xortaniyê min paşda birim... Min lezeteke baş ji wan bîranînan dît û bi hêvî me hûn jî bibînin.

Sala 1974'an bû. Ez nû zewicîbûm. Min dixwest bi xanima xwe ra derkevim welatekî Ewropayê bo gerr û seyranê. Lê ji ber ku wan salan gera ber bi Ewropayê ji bo bineciyên Sovyeta berê hema bêje qedexe bû, lê dîsa jî hinek rê hebûn di komikeke tûrîstiyê de herine welatên sosyalîstiyê yên li Ewropayê û em li wan riyan geriyan.

Ji ber ku bavê min û diya min sala 1971'ê bi vexwendina serokatiya kovara "Problêmên aştiyê û sosyalîzmê" çûbûne Çêkoslovakiyayê û li wir hinek kurd dîtibûn, wek xwedanê miqamê sirûda kurdî "Ey Reqîb" Qadir Dîlan û yên din, me jî biryar kir herine wî welatî.

Em ketine nava komeke tûrîstiyê ya gencan, me berê xwe da Çêkoslovakiyayê û bajarê pêşin, ku em lê hêwirîn, paytextê Slovakîyayê – Bratîslava bû. Çimkî koma me ya gencan bû, em ne birine mêvanxaneyê, lê di xaniyên xwendkarên welatên dereke da bi cî kirin. Min ji reng û rûyê kesên wî xaniyî diman texmîn kir, ku li vir gerekê kurd jî hebin. Îdî şev bû. Ez berjêrî hewşê bûm, min dît xortek û keçek rûniştine, ketine sohbetê. Nizanim çima, min got qey ew ereb e. Min biryar kir ez nêzîkî wî bibim, pirsa kurdan jê bikim, ka li vî xaniyî kurd hene, an na? Îcar ne ez erebî û çêkî zanim, ne jî ew ermenî û rûsî zane. Min hema yekser jê pirsî: -Ereb?

Ewî bersîva min da, got: -Ereb!

Min jê pirsî: -Kurd, kurd, ekrad?

Got: -Ez kurd im!

Wek dibêjin, bêhna min ber min da hat, me hinekî sohbet kir, paşê gote min, ku li wî xaniyî 17 kurd hene û Komela xwendkarên Kurd li Çêkoslovakiyayê jî li wir e. Hema wê êvarê min piraniya kurdên wira nas kirin û sê rojan ez û xanima xwe li wir man, em hema bêje bi komê ra nediçûne gerê û her bi kurdên me ra digerîyan. Roja, ku emê ji Bratîslaviyayê biçûne Pragê, serokê Komelê Dr. Xelîl Îbrahîm hejmara têlêfona kurdekî Pragê ser kaxez nivîsî, da min û got, ku ez ji navê wî jê ra telefon bikim, eger firsend hebe, wî bibînim.

Me xatirê xwe ji kurdên Bratîslaviyayê xwest, hatine Pragê, min kaxeza heval derxist, ku navê wî camêrî û têlêfona wî bizanibim, ku jê ra têlê xim. Ser kaxez navê wî camêrî bû: Ebdurehman Qasimlo. Min jî digot qey hevalekî wek wan e. Bi wê fikirê min jê ra têl xist.

Xanimekê hilda û navê xwe da: Hêlên. Wê bi soranî bersîva min da, lê gava ji min pê hesiya ku ez ji Sovyetê me û kurmancî dipeyîvim, bersîva min kurmancî da û got, ku mixabin Ebdurehman Qasimlo niha ne li mal e, lê hema hat wê jê ra bêje.

Ji ber ku li Pragê jî em li xaniyê xwendkaran diman û telefona me tunebû. Min navnîşan xanî û hejmara odeya xwe dayê. Piştî du demjimêran Ebdurehman Qasimlo û Hêlêna xanim hatine mêvaniya me. Min texmîn kir, ku evana ne wek hevalên di çaxê me de ne, û rengê Ewropiyan zêde li wan dikeve, merivên maqûl in. Em hinekî bi otomobîla wan ya Fîata Poloniya di nav bajêr da geriyan. Em pê hesiyan ku herdu jî mamostayê



unîversîtêtê ne. Roja dinê em bûne mêvanê mala wan. Li wir E.

Qasimlo pirtûka xwe ya "Kurd û Kurdistan" ya bi soranî û tebaxeke kevinare ya bi destan neqişandî (ew heta niha jî di odeya me da, li cîkî ber çavan e) pêşkêşî me kir û piştî ger û hevdîtina sê rojan, me xatirê xwe ji hev xwast, bi barek hesret di dilê me da, berê xwe da welatê xwe – Ermenîstanê. Ji ber ku em sê rojan ser hev bi hev ra bûn, min wisa texmîn kir, ku wana jî ji me hez kir.

Em hatine Rewanê, min derheqa rasthatina xwe û E. Qasimlo û xanima wî da ji hemûyan ra got, di nav wan da ji karmendên rojnameya "Riya teze" jî. Wana jî got: kê zane ew kê bûne?

Min wî çaxî nizanibû, ku ew Qasimloyê Mezin e, ku piştî Pragê bi neferên malê va cîguhêzî Fransayê bûne, ku sekreterê sereke yê PDK Îranê ye, ku Parîs hîştiye û ji bo gelê xwe ketiye çiyayên Kurdistanê, ku li rex pêşmergeyên xwe yên qehreman be. Ne kurdên Çêkoslovakiyayê, ne jî wana bi xwe derheqa siyasetmedariya Qasimloyê mezin da tu tişt ji me ra negot. Belkî jî difikirîn: Kurd in, ser çavên me hatine, lê kê zane, belkî ne ji bo xêrê hatine, belkî hinekan ew şandine bal me.

Em paşê, sala 1979'an pê hesiyan, ku em rastî kê hatine, gava hemû rojnameyên Sovyeta berê yên bi nav û deng derheqa şoreşa Îranê û berxwedan û mêrxasiya kurdan ya bi serokatîya Ebdurehman Qasimlo da dinivîsîn. Ew înformasyon ji rojnameya "Riya teze" ra jî dihat şandin û ji ber ku di Rûsî da herfên E û Q tune, bi Rûsî wek A. Kasîmlo dihate nivîsandin. Li wir kete bîra xebatkarên rojnamê, ku min berî 4 salan behsa wî camêrî ji wan ra kiriye û navê wî rast nivîsandin – E. Qasimlo.

Sala 1989'an bû. Ez, xanima xwe û herdu keçên xwe ji Rewanê li trênê siwar bûn û me berê xwe da Moskow bona çend rojan serhêsa bin û kêfa xwe bikin. Li ser sînorê Gurcistanê-Abxaziyayê trêna me çend sehetan sekinî. Ji me ra gotin, ku di navbera Gurcan û Abxazan da şer derketiye, em dibe çend demjimêran, heta çend rojan jî li vir bin, heta şer bi dawî tê.

Roja dinê ez ji betaliyê çûme nav bajar de ku agehdarê nûçeyên cîhanê bin.

Di rojnameya "Îzvêstîya" de min xwend, ku serokê kurdên Kurdistana Îranê Ebdurehman Qasimlo bi destê terorîstên rejîma Komara Îslamî a Îranê li Austrîyayê hatiye terorkirin. Piştî rojekê ji me ra gotin, ku trêna me ji dest şerê berdewam nikare berê xwe bide Moskoyê û divêt vegere Rewanê. Em vegeriyan.

Di rê da ez difikirîm: ruhberekî ne diyar biryar kiriye û dibêje, ku ne wextê kêfê ye, hûn gerekê vegerin mala xwe...

# Dema ku awreşkanê jî dibe kabûsek bo rejîmê



Sadiq Wehdanî

Çend rojan berî niha nûçeyên di warê cejn û şahiyên hinek ciwanên Îranî di nav parkan û bi taybet di bajarê Tehranê, bû bi yek ji nûçeyên herî balkêş di çend hefteyên derbasbûyî de.

Festîvalek sembolîk bi navê "awreşkanê û Xezbazî" ku ji aliyê çend ciwanên Îranî ve hatibû lidarxistin bona derbaskirina demek xweş bi hevalên xwe re bi dijkiriyara tund a hêzên întizamî û ewlehî ber bi rû bû. Ew dijkiryara li hember birêveçûna festîvala han de jî gelek balkêş bû, çendîn kes li parkên Tehranê û li bajarê Benderebasê hatin destbiserkirin.

Heta parlemana rejîmê jî bi tundî li hember wê festîvalê dijkiryara xwe nîşan da û çendîn nûnerên parlemanê di rûniştina eşkere a parlemanê mijara han xistin ber bas û li ser wê baweriyê bûn ku diviya dijkiryarek tundtir li hember wan ciwanan bihatiba kirin.

Husên Îbrahîmî, yek ji nûnerên parlemanê di rûniştina eşkere ya parlemana rejîmê xwaziyarê reaksiyonek tund li hember wan ciwanan bû.

Herweha Mûsa Qezemferî, endamê heyeta berpirsayetî ya nûnerên parlemanê, got ku bêguman, awreşkanê, pîlanek e ji aliyê welatên Rojavayî ve, ji bo dûrxistina ciwanan ji buha û çanda Komara Îslamî!!!

Mijara han ji çend aliyan ve cihê girîngîdanê ye.

Yekem dijkiryara tund a hêzên ewlehî ên rejîmê li hember şadbûna çend demjimêrî a komek ciwanan. Ku di rastî de nîşanderê zihniyet û kakila rastîn a Komara Îslamî li dor dijberîkirin bi hestên xweş û şadiya xelkê de. Rejîmek ku heta lîstika awreşkanê jî tehemul nake û riya Polîsî li hember de digre ber xwe.

Li gor serjimêriya damezirawa "Galup", xelkê Îranê tu cihek xwe di nav rîzbenda xelkê şad yên cîhanê de tunin. Serjimêriya han li ser bingeha beşdariya xelkê di rê û resmên werzişî û cejnên şahî û herweha hezkirin ji çalakiyên şuxlî û karên dilxwaz de hatiye encamdan.

Hertim bas ji rewşa nexwş û stemkariyên rejîmê li ser civaka Îranê di nav malperan û çapemeniyên civakî de tê kirin. Bas ji vê yekê ye ku rewşa civaka Îranê bi sedema givaşên siyasî rêxweşker e bo tûşbûna xelkê bi nexweşiyên cur bi cur ên derûnî.

Li gor rapora nûçegihaniya "Ferarû", Dr. Demarî, endamê Heyeta Zanistî a zanîngeha Tehranê, eşkere kiriye ku nêzîk bi 25 Milyon kes li Îranê tûşî nexweşiyên derûnî bûne.

Xemok (Diprêsyon) yek ji nexweşiyên derûnî ye ku hejmarek zaf ji xelkê Îranê tûşî wê nexweşiyê bûne. Givaşên siyasî, abûrî û malbatî, rewşa xirab a civakî û sîstema zal bi ser civakê di Îranê de sedemên derûnî yên wan nexweşiyan in.

Ger kesek jî bixwaze riyek paqij û saxlem bo derbaskirina demek xweş û rizgarbûn ji hestên nexweş ên derûniyên xwe peyda bike, li gel serkuta hêzên rejîmê ber bi rû dibe!! wate dijberiya rejîmê li hember şadî û tefrîha xelkê. Xweşî û lîstikên ku tu zirar nedaye emvalên giştî û canê tu kesekî/ê jî nexistiye metirsiyê, belkî tenê awreşkanêyek sade di germahiya havîna Îranê de bû.



Ji hêlek din ve tevlîhevbûna keç û kuran di wê festîvalê de bo rejîmê girîngî û nîgeraniyek mezin û taybetî bû. Çunku rejîmê di heyamê derbasbûyî de girîngiyek zêde daye mijara hicabê, û givaş û hewlên berfireh di warên cur bi cur ên çandî, polîsî û ... bona pêşîlêgirtina wê de dan.

Lê birêveçûna festîvala han bi wateya şikesta pirogramên rejîmê bo cudakirina keç û kuran ji hevdu û dijberî li gel diyardeya "Bed hicabî"ê bû.

Rejîmê tim ji kombûna xelkê tirs hebûye, bi taybet kombûna xelkek ku hizrîn û kiryarên wan li dijî buha û hizrîna rejîmê ne.

Rêkxistina ciwanan bo kombûn û birêvebirina merasîmên şadî û awreşkanê, bûye sedema nîgeraniya rejîmê ji nifûza şebekeyên civakî yên înternêtî di nav xelkê Îranê de. Malperên weke Facebook ku ji aliyê rejîmê ve hatine qutkirin, lê hinek ciwanên Îranî ji filtirînga wan malperan derbas dibin û em dibînin ku hejmarek zaf ji xelkê Îranê, endamên malperên civakî ên Înternêtî ne. Tirsa rejîm ji wan malperan di astekê de ye ku endametî di nav şebekeyên civakî weke tawan tê hesibandin û li gor yasayên dadwerî, endamên wan malperan di Îranê de tên hepsîkirin û diviya cezayên nexdî bidin.

Armanca girîng ji qutkirina wan malperan, tirsa rejîmê ji rêkxistin û hevahengbûna xelkê ye. Jiber vê yekê ye ku rejîm nîgeran e û ewqas reaksiyon û dijkiraran di astên cur bi cur de ji aliyê karbidestên rejîmê ve tên nîşandan.

## Her sal bayê 50 Milyard Dolaran, sermayeya Mirovî ji cehenema Komara Îslamî direvin



Li gor rapora malpera Aftab, her salê pitir ji 50 Milyard Dolar, sermayeya mirovî ji Îranê derdikevin welatên din.

Gorî raporê, amara han her ku diçe zêdetir dibe û diviya dewlet hewcehiyên bingehîn ên pisporên Îranî cî bi cî bike ku pêşî ji derketina wan ji welat bigre.

Herweha hejmarek zaf ji xwendekaran di astekê jor ya zanistî ji Îranê derketine derveyî welat û ew kesên ku li Îranê jî mane bi sedema cî bi cî nekirina sozên ku ji aliyê hikûmetê ve bi wan hatibû dan, dê Îranê bi cih bihêlin.

## Rêjeya Jinên li ser şeqaman di Îranê de ber bi zêdebûnê diçe

**Li gorî malpera hikumetî ya "Cewan": piştî destbiser kirina zêdetir ji 2 hezar jinên li ser şeqaman û lêkolîna li ser rewşa wan eşkere bû ku 600 kes ji wan, pêwendiyên cînsî ên ne rewa wek kar û pîşe ji xwe re hilbijartine , û 1400 kes jî ji riyên curbicur ve ketine vê davê û dest bi pêwendiyên cînsî kirine.**

Li gorî serjimêriyan niha zêdetir ji 5.1 milyon bîjin di Îranê de hene û her roj 160 kes bi vê rejeyê ve zêde dibin. Herweha 5.4 milyon keç jî hene ku hêla ne zewicî ne.

Li gorî malpera "Cewan" di nav wan keç û jinên ku seba lixwekirina xirab hatine girtin:

1) %78.9 ji wan li jêr 15 saliyê bûne,%9.46 di navbnera 16 heya 20 saliyê û %5.31 di navbera 21 heya 25'ê, û %8.13 di navbera 26 heya 30 saliyê bûne.



2) Di nava wan 2 hezar kesan de %6.84 neziwicî bûn, %1.13 ji wan zewicî bûn, %3.2 telaq wergirtibûn.

3)Zêdetir ji %9.46 ji wan heya qonaxa nawendî û dîplomê, %7.27 heya foqêdîplom û lîsansê, û %4.25 ji wan li serwey lîsansê bûn.

# Salvegera rijiyana du stêrkên esmanê hunera Kurdî

Kewê Zer

Gelek mirovên mezin di gemiya xemên mûzîka Kurdî de gihîştin dawiya temenê xwe, lê ew gemî hêj di nava pêl û bahoza behra zulm û sitemê de birêve ye û negihîştiye deravekê ku riha wan mirovan bi ronahiya serbestiya welat şa bibe.

Ew gemî her dê bimeşe, barê wê giran lê pirr bihagiran, ew hilgirê dengê welatek dagîrkirî ye, ew dixwaze dengê gelek bindest û belengaz derbazî çar aliyên cîhanê bike.

Dengê hunermendên Kurd ku helbest û hizrînên Ehmedê Xanê, Melayê Cizîrî, Feqiyê Teyran, Dildar Koyî, Hêmin û Hejar û gellek mêrxasên din ên dîroka gelê me diqîrînin û peyvên nazik ên bi nivîskî ên wan dikin peyvên devkî û di rastî de dikin gaziya aşitî û azadiyê. Dengên ku astengên evîna Mem û Zin û Ferhad û Şirînê dikin şîret bo serbestiya evînên îroyîn û xweseriya evîndarên jiyanê.

Ew dengên axê ne. Ew dengên zarokên êtîm û bêwejinên destê zulmê ne. Zû yan direng, gemiya xem û xeyal û xweziyên wan hunermendan vê bigîje axê. Lê mixabin ew xem û xwezî di dilê gellek ji wan hunermendan de bûn kul û ji wan re bûn hevalê tenêtiyê di seferek bê veger de.

Di wan çend rojên derbasbûyî de, salvegera koça dawî a du kes ji wan hunermendên ku tucar bi xweziyên xwe şa nebûn bû. Îran Xanim û Aramê Dîkran ku hemû temenê xwe di xizmet hunera Kurdî û qîrandin bo gihandina dengê gelê xwe û bi wî dengî parvekirina xem û xeyalên dinyayê û feleka bêbext tevî hevxemên xwe de derbas kirin û niha jî dengê wan hevalê hêminkirina kovanên cergbir ên pirr mirovên jiyanhez û ewlehîxwaz çi di qada serbestiya netewî de û çi di qada evîna bi axa xwe de, çi jî di qada evîndariya bertengkirî a ciwanan de ye.



### Îran Xanim

Îran Xanim li sala 1950'î de li Rojhilatê Kurdistanê, devera Biradostan a ser bi herêma Urmiyê li gundê Îşkesûyê di malbatek ticar de ji dayîk bûye. Navê bavê wê Ebdullrehman û navê dayîka wê Perîşan bû. Îran Xanimê temenê zaroktî û ciwaniya xwe li gundê Îşkesûyê derbas kir û wê berdewam bo bijîva jiyana xwe li bal malbatên dewlemenend dixebitî. Navbirî bi ciwanekê bi navê Seîd li gundê Somanewa li devera Somayê li herêma Urmiyê re zewicî û berê wê zewacê keçek û du xort dibin. Bi piştevaniya hevjiyê xwe xebata dengbêjiyê domand.

Li sala 1969'an de Îran Xanim diçe radyoya Urmiyê û di beşa Kurdî ya wê radyoyê de kar dike, herweha piştre xebata wê pêlên xwe berfireh dike û di beşa Kurdî a radyoyên Kirmaşan û Tehranê de deng vedide. Wê weke yekemîn jina bi zaraweya Kurmancî li Rojhiulatê Kurdistanê de karê dengbêjiyê kir û nav û dengek bêmînak ji xwe re bidest xist.

Piştî heyamekê Îran Xanim seba hin pirsgirêkan tevî hevjiyê xwe, dev ji hevjîn û zarokên xwe berdide û heyamekê di mala bavê xwe de dimîne, piştre bi kesekî bi navê Dadaş Nasirî re dizewice û diçe bajarê Tehranê. Di wan salan de Îran Xanim jiyanek pirr zehmet dimeşîne, lê tucar dev ji karê xwe yê hunerî bernade û gelek berhemên bi nirx tomar dike. Li gor hin çavkaniyan wê pêtirî 100 sitran bixwe çêkirine û gotine.

Îran Xanimê di nava derd û êşên faz di bertengiya hercure kar û xebatek li dervey mal ji jinan re di wî serdemî de nirxa hunera xwe zaniye û berewajî hemû ew kesên ku bi navê dilsojî jêre dixwastin wê ji karê dengbêjiyê dûr bikin, lê wê guh neda û bûye Îran Xanima ku niha di hemû kuncik û deverên Kurdistanê de nav û hurmeta xwe heye.

Her bi wî derdî û nebûna jiyanek bedew û tena, li gor rapora nexweşxaneya Urmiyê wê demê, Îran Xanimê bi destê xwe, xwe ji wê dinyayê xilas kir û xwe daliqandiye. Lê hin çavkaniyên din ên ku bi baş Îran Xanimê nas dikin, dibêjin ku sebebê mirina wê, kurê Dadaş Nasirî yê jina wî a berê bûye. Lê bi her awayekê be, Îran Xanimê xwatir ji dinya û evîndarên dengê xwe xwast û ji xwe re rûpelek zêrîn di dîroka mûzîka Kurdî de vekir û bûye yek ji çavkaniyên binirx ên sitranên Kurdî.

### Aramê Dîkran

Di êrîşa hovane a Turkên Osmanî bo ser Ermeniyan ku bi komkujiya Ermeniyan hatiye naskirin de, mirovek Ermenî bi destên Kurdan ji wê komkujiyê hatiye rizgarkirin û di mala axayek Kurd de heyamê çend salan bi awayê nehênî dijî. Ev mirov bavê Aramê Dîkran bûye. Aramê Dîkran di vê derheqê de dibêje: Bavê min hertimn digot ku "kurê min, hurmeta Kurdan bigre wan ji bîr neke, emeka wan li ser min pirr e, wan ez xwedî kirime. Ger hûn çar bira û du xwîşk niha li ser rûyê dinê dijîn, bi xêra Kurdan e. Ger Kurd neban hûn nedihatin dinê. Lewma bi sitranên xwe Kurdan biqedirîne, ew helbestên ku ez didim te, bike sitranên xweş û ji Kurdan re tomar bike û tu bixwe jî ji Kuradan re bibe dostek baş û tucar wan ji bîr neke".

Her çawa bavê Aram bi emeknasiya xwe bersivek erênî li hember xizmetên Kurdan bi vî ji xwe nîşan da, Aramê Dîkran jî emeka bavê xwe ji bîr nekir û zimanê xwe yê hunerî kir zimanê Kurdî û heya dawiya jiyana xwe ji ked û keserên gelê bindeste Kurd re sitirî.

Bavê aramê Dîkran ji aliyê wî axayê Kurd ve bo Kurdistana Sûriyê hatibû şandin, di sala 1966'an de tevî pirraniya wan Ermeniyên ku derbasî Sûriyê bibûn, vegeriyan ser



axa bav û kalên xwe li Ermenistanê. Li wir jî car din Aramê Dîkran emeka xwe nîşan da û çû radyoya Yerîvanê û tevî Xelîl Muradov berpirsê para Kurdî ya wê radyoyê civiya û di wê beşa radyoyê de dest bi kar û xebata xwe bi zimanê Kurdî kir.

Di rastî de, dema ku bas li radyoya Yerîvanê tê kirin, berî her kesî dengê Aramê Dîkran tê hizra mirov. Ewa jî seba vê yekê ye ku wî mirovî bi evînek kûr ji Kurd û zimanê Kurdî re xizmet kiriye ku para Kurdî a radyoya Êrewanê bi dengê xwe xemilandiye û nasandiye.

Diyare Aram elaqeya bi zimanê Kurdî di malbata xwe de girtiye, çimku bav û diya wî hertim di mala xwe de bi zimanê Kurdî axaftine û zarokên xwe jî bi vî zimanî elimandine. Tenê emeknasî û bi kurdî axaftin û sitrîna Aramê Dîkran nikare kesatiya wî re bibe mînak. Belkî Aramê Dîkarn bi xizmetên xwe ên bi zimanê Kurdî xwe weke xebatkar û şoreşvanek Kurd da naskirin, çimku wî hest bi bindestî û mafxwariya gelê Kurd dikir û bi xem û xeyalên xwe dizanîn. Lewma çendîn sitranên wî ên şoreşgerî û qala azadî û rizgariya Kurdistanê dike. Her weke beyta Feqiyê Teyran dike sitran û dibêje:

Bi xeml û rewş e, şirîn û xweş e, şirîn û xweş e, zimanê Kurdî. Çi xweş awaze, letîf û naz e, letîf û naz e, zimanê Kurdî. Bi vî awayî, Aramê Dîkran hertim weke sembola pêwendiya di navbera gelê Kurd û Ermenî de tê naskirin.

Riha her du hunermendan Aramê Dîkran û Îran Xanimê şad be û riya wan berdewam e bo gihîştina gemiya xweziyên wan bi axa welat.

# Rewşa Nûçegihanan di Îranê de



Ceifer Mubeşirniya

Roja 14'ê Galawêjê li Îranê de weke roja nûçegihanan hatiye binavkirin. Eva jî li rûyekî de bi wê manayê ye ku girîngiyek pêtir bi ragihandin û xebatkarên vî warî bihê dayîn! Girîngtirîn û serekîtirîn xizmet û buhadan bi ragihandinê, azadiya derbirînê ye. Derbirînek ku bikare ji riya kanalên ragihandinê ve dengê xelkê be, vêca ji her netewe, ol û bawer û rengekî be. Ji bo rêzgirtin ji her bone û rojek taybet, berî hertiştî, hewce ye ku rêz ji xebatkar û rêvîngên riya wê boneyê yan bi watayek din wî warî bihê girtin.

Ev roj di halekê di Îranê de derbas bû ku pirraniya wan xebatkar û nûçegihanên rastîn ên ku zimanê daxwaziyên xelkê ne, yan di girtîgehan de çavnihêrê hukmê daliqandinê dikin, yan jî bi tu awayekê newêrin rastiya dilê xwe bêjin.

Eva di demekê de ye ku mezintirîn sermayeya warê ragihandinê ku belediyên hînkirin û rasterêkirina xelkê bo jiyanek baş û hêja di pêşerojê de ne, kom bi kom bo parastina canê xwe, welatê bav û kalan bi cih dihêlin û derbasî welatên din ên ku bêhna azadiyê jê tê dibin.

Çimku di rastî de cihek ji bo çalakiyên wan di navxwe ya welat de tune ye. Ji berku ragihandin di Îranê de li gor bawera desthilatdarên Komara Îslamî heke ji teblîx bo pawanxwazî û piştrastkirina rewatiya rayedarên dasepayî bi ser xelkê de zêdetir be, eva pê dirêjtirkirin ji berika xwe tê hesibandin û diçe qalibê teblîx bo çandên biyanî û çendîn tometên din ên ku rojane civaka cîhanî di riya kanalên ragihandinan de dibihîzin û bê xalîxerez çalakên çandî bi taybetî di warê ragihandinê de dikevine çalên reş ên Komara Îslamî de.

Bi vê rewşê dê çawa rêz ji vê rojê di Îranê de bihê girtin. Ger rêzgirtinek jî hebe, weke pîşeyê hertimî yê dîktatoran li jêr çetra vê rejîmê de ye ku tenê dê rêz ji kirêgirtiyên bi navê nûçegihan û rojnamevanên di xizmet desthilatê de bihê girtin.

Lê bo desthilatek bêşerm a weke Komara Îslamî, riyakarî pîşeyê sereke ye ku nûçegihan û rojnamevanên welatê xwe bi alavê destên biyaniyan bidin naskirin û bi vê hêcetê dengê rastiyê bifetisînin û bêjer û daxwazkerên mafên mirovan di Îranê de bixin girtîgehan û li jêr îşkenceyên hovane de rihê wan yê wêrekane ku tucar teslîmî direw û riyakariyên Komara Îslamî nabin ji wan bistînin. Di heman dem de jî qala rêzgirtin ji 8'ê Tebaxê roja nûçegihanan di Îranê de ji vê rejîmê tê bihîstin.

Di nizîkatiyên 14'ê Gelawêja îsal de, dawî rapora Nûçegihanên Bêsînor bas ji rewşa nûçegihan û çalakên ragihandinê di Îranê de dikin, li gor vê raporê, Îran tevî 3 hevalbendên xwe wate Koreya Bakûr, Turkmenistan û Erîtrê, pileyên dawiyê li rêzbenda welatên ku ragihandin û rojnamevanan tepeser û sansor dikin, bidest xistine û rêberê Komara Îslamî û Serokkomarê vê rejîmê jî weke hercar bi dujminên azadiya ragihandinê hat naskirin.

Her divê derheqê de, ji aliyek din ve raporek ji aliyê "Firîdom Haws" ve hatiey amadekirin ku di nava 37 welatên ku azadiya Înternêtê berteng dikin, Îran welatê 37mîn e.

Ji aliyê xwe ve jî, nûçegihanên bêsînor ku binkeya wan li Parîsê ye, radigihînin ku 30 rojnamevan û wêblagnivîs li Îranê di girtîgehê de ne û herweha amaje bi vê yekê dikin ku Îran yek ji 5 girtîgehên mezin ên rojanmevanan di cîhanê de ye.

Herweha zêde dike ku di sala 2011'an de 25 rojnamevan û 16 hevwelatiyên çalak di warê azadiya derbirînê di Îranê de hatine hepsîkirin. Her di vê çarçoveyê de, Ehmed Zêdabadî, rojnamevanê girtî ku bi 6 salan hepsê û jê qedexekirina her cure çalakiyên çandî û ragihandinê hatiye mehkûmkirin, bi rehîna 500 milyon tûmenî bo seredanek 48 demjimêrî bo mala xwe hat îzindayîn û di roja 8'ê Tebaxê roja nûçegihanan de vegeriya girtîgehê.

Ji aliyek din ve jî roja nûçegihanan di Îranê de li halekê birêve çû ku di destpêka heftiya derbasbûyî de 13 rişteyên xwandina zanista mirovî di zanîngehan de, ji wan rojnamevanî jî hatine qedexekirin. Ewa di halekê de ye ku yek ji mamostayên zanîngehê yê rişteya rojnamevaniyê di vê derheqê de dibêje:

Niha jî em sedemên qedexekirina rişteya rojnamevaniyê nizanin.

Gelo bi vê rewşê ku rojname tên daxistin, rojnamevan tên girtin û lidardan, înternêt tê qutkirin, mahware tên komkirin, kenalên televîzyonî ên navxweyî tên qorixkirin, her zimanek azad tê birrîn û ...hwd, lê Komara Îslamî îdia dike ku rojek weke roja nûçegihanan bo rêzgirtin ji kar û xebata wan pejirandiye, bûna rojek wiha çi manayek heye?



# GER HAT Û Lİ ME HESİLÎ BİHAR

Çiya Mazî

Ger hêviyên me î sitewr bi hisreta berheman
Di nava mija bi havên de çurisîn li lûtkeyên darîstanên me
Û gezoyê pelên darên mazî biriqandin di berbangên me î gewr de
Ez zanim wê lê bide dilê me bi halanên ji birînên sor û hildayî
Ez zanim wê qêrîna mizgîniyê bi me din başokeyên bi bê dilîzin
Ger hat û li me hesilî bihar
Û nebatan rehên xwe di nava axa bi dilopên jiyanê avdayî de
Bi cîh kirin û bilind bûn simbilên genimên me
Ez zanim wê çi kulîlkên xweşik rûbidin
li zozanên me î di nava gihayê şîn û zer de mayî
Ger hat û xunavên nîsanê serûber li me bariyan
Û li ser tahtan hinetaçkên xwe çêkirin kêzik û mûriyan
Çivîkan bi lîrandina bilbilên nû bi firê ketine lorîkên xwe şîrqiyan
şahrên xwe rengo rengo kirin nukulsorên kewên gozel
û xwendin bi qebeqeb helbestên me
Ez zanim wê demê wê bedenên me bi xwîna biharê re biricifin
û bihingivin ji deryayên eşqê çav û lêvên me
Ger hat û qut bû ji guhên me
Dengê mitralyozan û minetên axayên simbêlbadayî
Û dîlanên me ji bo evîndaran xelek xelek geriyan li gorepanên me
Ez zanim wê ken û bişirîn deynin navên xwe qîz û xortên nûhatî
wê berxik û karik bibanın û sorgulî mezin bibin wê demê
Û bi kêf bi holîkên xwe bilîzin zarokên me î li dora argûnên dayikên xwe
Ger hat û heliya berfên serê Agiriyên me î qor bi qor li pey hev
bû lehî û xwe bera nava best û newal û geliyên me dan
Û tije kirin kanî, avzêmk û rûbarên me
Pêl bi pêl geryan çêkirin li ser gol û deryayên dilê cegerxwînên me
Ger kêf û şahî li dar ket li nava gor û gorîstanên me î gewre
Û bi çepikan re, destmalên sipî kilkirin miriyên me
Ez zanim wê şer bifetise di nava gola çembera hêsirên me de
Û zanim wê mirovahî lêborîneke derengmayî bixwaze
Ji bo aştiyeke derengmayî li ser vê axê.

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## 32 hezar zarokên bê nasname
### di Îranê de dijîn



32 hezar zarokên bê nasname ku berhema zewicîna jinên Îranî li gel hevwelatiyên biyanî ne, li Îranê dijîn û jiyana wan di rewşekê nerohn de ye.

Li gor rapora "Xeber onlain", pirraniya babên wan zarokan Efxanî ne ku bi xwe jî bê nasname ne û wan tu mafek şaristanî di Îranê de tune ye, û herweha gellek ji wan zarokên xwe li Îranê terkandine û çûne Efxanistanê.

Li gor amarên fermî, 30 hezar jinên Îranî li jêr çavedêriya wezareta Kar û Barên Derveyî welat, bi mêrên Efxanî re zewicîne, ku bi sedema tunebûna yasayek rohn bo piştevanî ji zarokên wan, 32 hezar zarok, bi bê nasname di Îranê de dijîn.

## 800 hezar mirî û 9 Milyon birîndar li bûyerên
### cadeyî ên 32 salên derbasbûyî di Îranê de

Esedulla Colayî, berpirsê Sitada Diyê, hejmara kesên ku bi sedema bûyerên cadeyî di 32 salên derbasbûyî de li Îranê hatine kuştin, 800 hezar kes ragihand. Herweha got ku 9 Milyon kes jî bi vê sedemê birîndar bûne. Eva di halekê de ye ku hejmara gişt kesên ku di şerê Îran û Îraqê hatibûn kuştin kêmtir ji 230 hezar kes bûn.

Navbirî got ku tu welatek cîhanê weke Îranê di vî warî de nine û amara bûyerên cadeyî li Îranê ji navênciya cîhanê gellek jordetir e.

Navbirî herweha ragihan, salê 23 hezar kes bi sedema bûyerên cadeyî li Îranê canê xwe ji dest didin û 300 hezar kes jî bi vê sedemê birîndar dibin.



## AKP: Em cejnê li BDP'ê
### pîroz nakin

Li gor nûçeyan, Erdogan û AKP'ê ji BDP'ê xeyîdine û deriyên xwe ji BDP'ê re girtine heta ku BDP'ê di navbera xwe û PKK'ê de dûrbûnekê pêk bîne û li Meclîsê sond bixwe.

AKP'ê biryar daye li roja cejnê cejna Remezanê li BDP'ê pîroz neke. Her wiha hate zanîn wê ev biryar tenê bi cejnê ve girêdayî nemîne, heta êdî bi BDP'ê re ne rûne û nameya jibo xebatên Makzagona nû ku ji aliyê Erdogan ve hatiye amade kirin û wê rêke ji serokê partiyan re, wê Selahedîn Demîrtaş re rêneke. Hêncet ew e ku divê BDP'ê dûrî PKK'ê bikeve û li Meclîsê sond bixwe.

Avestakurd



## Bi sedema feqr û hejarî, malbatek
### Kirmanî bikom xwe kuştin

Di bajarê Kirmanê de, dayîk û 2 keçên wê ên nûciwan dawî bi jiyana xwe anîn.

Li gor zaniyariyên Polîs û cînarên wan, nameyek li cem termên wan hatiye dîtin ku têde nivîsîbûn bi sedema feqr û hejarî biryar dane ku xwe bikujin. Hêjayî gotinê ye ku hêzên ewlehiyê ew name tevî xwe birin.



## ciwanek Çînî bi termê
### kecekê re zewicî



Ciwanek temen 26 salî yê xelkê Çînê, rê û resma zewacê tev evîndara xwe ku 8 rojan berê hatibûn kuştin pêk anîn

Li gorî malperên Çînî, heyamek dirêj bû ku di navbera wan 2 kesan de pêwendiya evîndariyê hebû û demek ji bo rê u resma zewaca xwe diyar kiribûn, lê 8 rojan berî dema han, ev keç ji aliyê dizan ve tê kuştin.

Lê mirinê jî nekarî pêşiya evîndariya wan bigre û xoertê 26 salî soza xwe bicih anî û bi termê keçikê re zewicî.

Rê û resma wê zewacê bi amadebûna malbatên wan du evîndaran di avahiyeke taybet yê cenazeyan de destpê kir. Hêjayî gotinê ye ku kincên bûkîniyê li ber bûkê bûn û di nava tabûteke krîstalî de raketibû, zawa jî wêneyek bûkê bi dest girtibû û pêşwaiya mêvanan dikir.

Her wiha di merasîmê de zewa gustîlka bûkîniyê kir tilya bûkê.

Avestakurd

